*Bi destveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de*

Hejmar: 142

7'ê Îlon a 2010

Buha: 150 Tûmen

# agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

*Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne*

**Monomênta şehîdên Vîyenê ji aliyê kesên nenaskirî ve hatiye têkdan**

Komîteya PDKÎ li Utrîşê di daxuyaniyekê de ragihand ku monomênta bîranîna şehîdên Vîyenê ku li cihê terorkirina şehîd Dr. Qasimlo de perde li ser hatibû hildan, ji aliyê kesên nenas ve bi rengê Sipî hatiye têkdan. Herçend vekolînên derheq vê kiryara nemirovane ji aliyê dezgehên peywendîdar ên Otrîşê ve berdewam in, lê guman di vê yekê de nine ku ev riftara neşaristanî, karê taqimên ser bi Komara terorîstperwer a Îslamî a Îranê ye.

# Gotûbêj li pêxema aştiyê, Roja Quds jî li pêxema şer û xwînrêjiyê




Çendîn girûpên Felestînî ku mezitirînê wan Hemas e, ragigandin ku hewlên xwe dê li dijî pêvajoya aştiya Îsraîl û Felestînê berfireh bikin. Eve di halekê de ye ku gotûbêjên aştiya di navbera Natanyaho, Serokwezîrê Îsraîlê û Mehmûd Ebas, Serokê Teşkîlata xwebirêveber a Felestînê, ji roja Pêncşemî, 11' ê Xermananê li Waşîngtonê bi fermî destpê kiriye.

Roja Çarşemî, 10' ê Xermananê, Barak Obama di konferansek nûçegihanî de di Koşka Sipî de ku bi beşdariya Natanyaho, Mehmûd Ebas, Serokkomarê Misrê û Şahê Urdunê birêve çû, hêvî xwast ku gotûbêjên aştiyane di heyamê salekê de bikare bigîje vajoya rêketinnameyekê.

**Dom R: 7**

Birêz Mistefa Hicrî, Sektererê Giştî yê PDK Îranê:

"Rejîma Îranê çalakên sivîl û siyasî bi tometa qaçaxkirina madeyên sirker îdam dike" R: 2



Birêz Dr. Salih Mela Umer:

"Vekişîna hêzên Amerîka ji Îraqê rewşê aloztir û dê pirsgirêkan ji bo hikûmeta Herêma Kurdistanê pêk bîne" R: 3



# Mistefa Hicrî: "Rejîma Îranê çalakên sivîl û siyasî bi tometa qaçaxkirina madeyên sirker îdam dike"

Rêzdar mistefa hicrî sekreterê Giştî yê PDKÎ ku roja 31.08.2010'an di bernameya beşa Farsî a "Tish Tv" a bi navê "Rozenê" de mêvan bû, nêrîn û boçûnên xwe derheq mijarên siyasî ên rojevê eşkere kir. Di destpêka hevpeyvînê de û di bersiva pirsyarekê de derheq armanca sereke a Komara Îslamî a Îranê ji xurtkirina pêvajoya serkut û tepeserkirina netewên Îranê de got: Bingeha vê siyasetê vedigere bo vê ku niha di navxweyî welatê Îranê de û di wan herêmên ku netewên cur bi cur ên Îranê têde akincî ne, hejmara çalakên siyasî ku hewilê didin bona bidestxistina mafên siyasî ên xelkê xwe, pirr zêde bûne. Hişyariya netewî di herêmên han de berfirehtir bûye û yek ji sedemên zêdebûna astê hişyariya siyasî, zulm û zordariya Komara Îslamî ye. Zêdebûna astê daxwazên netewan pêwendiyek rasterast heye digel tepesekirina netewên Îranê û îdamkirina çalakên siyasî ên deverên han li jêr navê qaçaxçiyên madeyên sirker, girêdayîbûn bi aliyên biyanî û herwiha tawanbarkirina wan bi encamdana kiryarên cînayetkarane û nebaş. Lewra rêjîm bi hêcetên han xelkê azadîxwaz tepeser dike.

Mistefa Hicrî herwiha di doma axivtina xwe de îşare bi nameya yek ji fermanderên besîcên Azerbaycana Rojhelat bo nûneratiya navenda rêberî bo karûbarên navnetewî a vê hêzê kir ku têde bas ji terhea rejîmê bona rêkxistna hinek kesan di welatê Azerbaycan û Nexcewanê de hatiye kirin bi armanca bêhurmetîkirin bi pêxemberê Îslamê û Îmamên Şîe di belavok û rojnameyên vê herêmê de di bin navê neteweperestiya Turk. Di vê nameyê de bas ji vê yekê hatiye kirin ku "hewilê bidin bi her awayekê be ewlehiya canî û maliya sîxoran di vê gelaleyê de biparêzin.

Hicrî di pêwendî tevî bêdengiya medyayên zal bi ser pêvajoya tepeserkirinan di herêmên Îranê ên ku netewên weke Kurd, Turk, Belûç, Ereb û... têde akincî ne kir û got: Ez gellek zîndaniyên siyasî di Kurdistanê de nas dikim ku cezayê zîndana dirêjheyam bi ser wan de hatiye sepandin. wan gellek salên dûr û dirêj di girtigehan de derbaz kirine û heta hinek ji wan mafê vê yekê jî bi wan nehatiye dan ku di zîndanên Kurdistanê de heyamê zîndana xwe biqedînin daku aliyê kêm malbatên wan bikarin seredana wan bikin û hewcehiyên rojane ên jiyana wan dabîn bikin. Rejîm girtiyên han bo navend û deverên dûrdest ên Îranê vediguhêze. Lewra malbatên girtiyên siyasî ku piraniya wan ji çîna destkurt û hejar a civakê ne, seba destkurtiyê nikarin zûzû seredana ewladên xwe bikin û navê wan kesane di tu cihekê de nediyar e.





Di wan rojane de di medyayên hizbî û saziyên siyasî ên Kurdî de bas ji zîndaniyekî siyasî ê Kurd bi navê "Rehîme Reş" tê kirin ku hûn bi tu awayekê dengdana vê nûçeyê di medyayên navnetwî û navxweyî ên Îranê de nabînin. Ez xatircem im ku di gellek deverên din ên Îranê de ku netewên cur bi cur têde akincî ne, zîndaniyên han ên siyasî pirr zêde ne û vê dawiyê hinek nûçe di zîndan Meşhedê de derketine ku bas ji vê yekê dikin ku di 2-3 mehên borî de sedan girtî bi tawana qaçaxkirina madeyên sirker hatine dardarkirin. Tawanek ku dûr e ji rastiyê.

Îdiaya parvekirina Îranê yan şerê dinavbera netewên vî welatî de, yek ji deîyên dijberên fedralîzmê di Îranê de ye Mistefa Hicrî di vê pêwendiyê de dibêje: Gotina vê qisê ku fedrlalîzm û otonomî dibe sebebê parvekirina Îranê, dirûşmek e ku ji aliyê rejîma Îranê ve tê dan û berê jî ji aliyê rejîma Paşyetî ve dihat gotin. Yên ku di vê pêwendiyê de piropagendê dikin, xincî dezgehên fermî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê, dibine du deste. Hinek ji wan girêdayî ne bi Komara Îslamî a Îranê û diyar e ku rejîma Komara Îslamî dema xwazyarê pêkanîna her rewşek siyasî be, ji zimanê çalakek yan kesayetiyek asayî belav dike. Beşek din jî, ji wan kesan pêk tên ku xwediyê zaniyariyên zêde di vê derbarê de nînin. Em dibînin ku li derveyî welatê Îranê de gellek welatên din ên firenetew hene ku di wan welatan de û di çarçoveya sîstemek federal û otonom de bihevre dijîn û xwediyê mafên xwe ne û tu pirsgirikek jî ji wan re pêk nehatiye. Her di Îranê de me bi xwe ezmûna du hukûmetên otonom ên Azerbaycan û Komara Demokrat a Kurdistanê hebûye. Lewra em dikarin bibêjin ku fedralîm ne tenê nabe sedema pêkhatina nakokiyan, belkî hevgirtinê jî di nava netewan de pê tîne. Çimku ger netewên Îranê xwediyê mafên xwe bin û bikarin herêmên xwe bi xwe birêve bibin û ferq û cudahî nemîne, ew dê çima daxwaza cudabûnê bikin?!

Di pêwendî digel dirûşma hilweşandina rejîma Komara Îslamî û ew boçûnên ku dibêjin cîbicîkirina dirûşmek han hewcehî bi bikaranîna tundûtûjiyê heye û encama wê dibe sebebê pêkhatina dîktatoriyê, sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat got: Bi raya min eva ne gotinek rast e, çimku hukûmetên wisan hene ku bê bikaranîna tundûtûjiyê desthilat girtine destê xwe û di encam de bûne dîktator. Yanî ev pîvana giştî ne rast e û berevajiya vê hizrê jî hebûye. Her di vê nîv sedsala borî de hinek welat hebûne ku di encama çalakiyên sivîl û dûr ji tundûjiyê hatine hioşîn û li cihê wan de hinek hukûmetên demokrat û hinek caran jî dîktator gihştine desthilatê. Bo mînak Yekîtiya Soviyeta berê ku yek ji wan welatên herî bihêz ên cîhanê bû ku bê tundûtûjî hilweşa û encma hilweşana wê jî pêkhatina hukûmetên herêmî bi destê netewên wî welatî bû. Di nava wan hukûmetan de hinek ji wan bi şêwazên demokrat tên birêvebirin û hinek jî nedemokrat in. Lewra derkirina hukma giştî derheq ewê ku encama bikaranîna tundûtûjî û şoreşkirinê, dîktatorî ye ne rast e û berevajiya wê jî dîsa ne rast e. Lewra baskirina tiştên han di berjewendiya parastina rejîma Îranê de ye.

## Eyad Ellawî, Îran Bi Rollîstin Di Rewşa Siyasî A Îraqê De Tawanbar kir



Eyad Ellawî, carek din jî êrîş kire ser Komara Îslamî û bi wê yekê tometbar kir ku dixwaze Îraq bike welatek ku li dewsa wê de bimeşe.

Navhatî bi rojnameya "Elreî" a Kuwêtî re ragihand: Welatê Îranê di nav Îraqê de aliyekê bi dijî aliyekî din han dide û dixwaze Îraqê bike welateke bindestê xwe û rola xwe di wî welatî de pêtir bike.

Ellawî, seba wan hewlên Îranê hişyarî da aliyên siyasî ên Îraqê û got: Îran dixwaze di pêxema berjewendiya xwe de şerê tayifî di Îraqê de xurt bike.

Dr. Salih Mela Umer:

# ''Vekişîna hêzên Amerîka ji Îraqê rewşê aloztir û dê pirsgirêkan ji bo Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêk bîne''

**Hevpeyvîn: Selîm Zencîrî**

**Pêknehatina hikûmeta nû ya Îraqê, vekişîna hêzên şerker yên Amerîkayê, desttêwerdana dewletên cîran li kar û barên Îraqê û bandora wan li ser pêgeha kurd li vî welatî de, ji mijarên sereke yên hevpeyvîna me bi Dr. Salih Umer, mamostayê zanîngeha Selaheddîn in ku em bala we xwendevanên hêja jêre radikişînin.**

**Li ser pêknehatina hikûmeta nû ya Îraqê piştî borîna 6 mehan bi ser hilbijartinên Parlemanî yên vî welatî de û ew sedem û fakterên ku li vê derheqê de bibandor in, dr. Salih Umer wiha bersiv da.**

Him sedemên derekî û him jî sedemên navxweyî hene. Li asta navxweyî de, sedem ev e ku li nav civaka Îraqê de kultora hevdu qebûlkirin, bawera siyasî li nav aliyên curbicur, civaka sivîl û nasnameya netewî ya Îraqîbûnê nine, eqliyetek ayînî û eşîretî li vê civakê de serdest e ku rêz ji yasa û destûrê nagre.

Sedemên dereke jî em dikarin parveyî du desteyan bikin:

1: Desttêwerdana welatên deverê weke Erebistan, Sûriye, Misir, Turkiye û Îran, ku her yek ji wan ji aliyekê ve berevaniyê ji şîe û suniyan û ji hêla din ve jî berjewendiyên xwe dişopînin.

2: Guhertin li siyaseta Amerîka li Îraq û Rojhilata Navîn de. Dewleta Amerîka li destpêka hiloşandina rejîma Beis de bi hemû awayekê hewil da ku demokrasiyê li Îraqê de cihgîr bike. Lê li sala 2006'ê vir de dema ku Îraq tûşî kirîz û pirsgirêkan hat, Amerîkayê girûpek bi navê "Bîkir Hamilton" ji bo nirxandin û analîza rewşê şande Îraqê. Wê girûpê jî hin pêşniyaz pêşkêşî dewleta wê demê ya Amerîkayê kirin ku hewce ye Amerîka tenahî û seqamgîriyekê li nav Îraqê de pêk bîne, lewma hewce dike ku danûstandin û guftigoyê li gel Îran, Sûriye û welatên Erebî de bike. Bona wê ku berjewendiya hemû dewletan li Îraqê de misoger û bihê parastin. Lewma me dît ku bi awayekî piraktîkî li gel dewleta Îranê rûniştin. Nansî Pilosî jî bi xwe serdana Sûriyayê kir û bi Beşar Esed re rûnişt û basa piroseya navxweyî a Îraqê kir.

Lê pirsiyarek vir de tê pêş! gelo demokrasiyek ku Amerîkayê ji riya guftigo û diyaloga bi Îran û Sûriyayê re bawerî pê hebe, dibe çi cure demokrasiyek be!? Ew ne demokrasî ye, belkî cihgîrkirina ewlehiyê ye. Niha jî bi vekişandina hêzên xwe dixwaze desttêwerdanê li kar û barên hundirîn yê Îraqê de neke bona wê ku civaka Îraqê bi xwe çarenivîsa xwe diyarî bikin.

**Kîjan ji wan welatên ku we navê wan bir, kariye herî zêde hevkêşeyên siyasî yên Îraqê bi qazanca xwe biguherîne û zêdetirîn nifûz û karîgerî li wî welatî de hebe?**

Berê Îraq xwedî dewletek bihêz li deverê de bû û li hember Îranê de rawestiyabû, bi vê çendê jî balansa desthilatê li Rojhilata Navîn de hatibû parastin. Ev yeke jî li berjewendiya Amerîka û Îsraîlê de bû. Ji hêla din ve jî stratejiya Amerîkayê ew bû ku lawazbûna her yek ji wan, tê wateya lawazî û bêhêz bûna dujminên Îsraîlê. Şerê 8 salî jî mînaka vê lawazbûnê û li berjewendiya wan de bû. Lê piştî hiloşîna rejîma Beis, Îraqê nekarî li hember berjewendiyên Îranê de bisekine yan balans û terazûya hêzê biparêze. Lewma ger zorahiya şîeyan li Îraqê de desthilatê bidest bigrin, egera wê heye ku li gel Îranê de lihev bên û wê demê jî metirsiyê bo ser berjewendiyên Amerîka û Îsraîlê biafirînin. Lê dewleta Amerîka pir huşyarane û zîrekane tevgeriya û li lîstika siyasî a xwe de girîngî bi welatên erebî weke Misir, Erebistan, Urdon û heta Turkiyê jî da û bi awayekê ew rakêşî qada siyasî ya Îraqê ji bo berevanî kirin ji erebên sunnî yên Îraqê kir û karî wan bihevre mijûl bike û balansa desthilatê li Rojhilata Navîn de pêk bîne ku berjewendiyên xwe û Îsraîlê pê biparêze. Lê bi qenaeta min Amerîka vê iznê nade ku tu dewletek li deverê de xwe bi ser dewletek din de serdest bike û dê bixwe take desthilata bêrikeber li deverê de bimîne.

**Çarenivîsa hikûmeta Îraqê dê bigihîje kur? Gelo dê bibe hikûmetek ku pênase û teibîr ji hemû Îraqiyan bi pêkhateyên netewî û ayînî yên cuda bike?**

Eva pirr zehmet e. Çunku em bas ji vê hindê dikin ku me dewletek demokratîk hebe ku hemû aliyek li ser de lihevhatibin û berjewendiya tev aliyekê têde bihê parastin. Mînaka Lubnanê dikare ji bo Îraqê guncaw be. Lê hinekê zehmet e, çunku eqliyeta erebên sunnî li îraq û deverê de li dû bakgirawendek 80 salî a dîktatorî û desthilatdariya xwe de digere û dixwazin vê desthilatê li destê xwe de biparêzin, lewma dewletên îro yên erebî vê siyasetê qebûl nakin ku desthilata yekem li destê şîîyan de û desthilata duyem jî li dest kurdan de be. Lewma him modela Lubnan û him jî modelek demokratîk weke dewletên rojava pirr zehmet e cihgîr bibe. Bi raya min kêşe û kirîz carê dê berdewam bin û heta eger hikûmet jî pêk were, gelek bihêz nabe û biryarên hikûmetê li her cihekê birêve naçin. Bo mînak li Parêzgeha Mûsilê ku wan zorahiya dengan bidest xistin û kurd beşdarî piroseya siyasî li wir nekirin, biryarên wan jî li deverên kurd akincî de birêve naçin û guh jêre nahê dayîn, lewma



"Ger kurd dixwaze deverên veqetiyayî vegerîne, hewce ye gelek bihêz be. Çunku li cihekê ku kar bi yasa û destûrê nehê kirin, divêt bi hêz bihêkirin"

ger mêzeyî waqi'a siyasî a Îraqê bikin, baştire ku Îraq dabeşî sê deverên federal bihê kirin ku her yek li cihê xwe de hukim bikin.

**Li wiha rewşekê de gelo her yek ji sunî û şîeyên Îraqê gihîştine vê bawerê ku wan jî herêmek federal hebin bona wê ku çi din li bindestiya hev de nebin? Li rewşek wiha de destkevta kurdan çi dibe?**

Piraniya sunniyan li dîtingeha parvebûna Îraqê mêzeyî federalîzmê dikin. Çunku dema temaşayî cuxrafiyaya xwe dikin ku 3-4 Parêzgehên bêdahat û bê neft hene û li hember de jî Herêma Federal a Kurdistanê û deverên Şîî çavkaniyên binerd û cihên geşt û guzar û turîstî yên pirr dahat û dewlemend hene, hest bi metirsiyê dikin û bi hemû awayekê dijberiya sîstema federalîzmê dikin.

Lê ger em bi awayek rast û realîtane mêzeyî federalîzmê bikin, bi tu awayekê wateya parvebûnê nade û gelek ji welat jî bi vê sîstemê birêve diçin. Nemaze Îmaretên Yekgirtî yên Erebî jî ku sîstemek federalîstî ninin, lê dabeşkirina desthilatê hene ku gelek ji vê sîstemê nizîk e. Lewma ger ev sîsteme ser bigre û her yek ji kurd, sunnî û şîî îdare û birêveberiya xwe bikin, dê hewil bidin ku xwe vegeşînin, li egera pêşketin û vejîna her yek ji wan jî Îraq geşe dike û bihêz dibe, wê demê jî berjewendiya hemû takên Îraqê parastî dimîne. Lewma li gor nirxandina eqliyeta wan zehmet e ev sîsteme ser bigre. Lê li rastî de metirsiya mezin û sereke, eqliyeta wan e ku Îraqê ber bi parvebûne dibe nek sîstema federalî.

Lewma eve siyaset û hêviya me ye ku erebên sunnî û şîî jî vê rastiyê qebûl bikin û bêşik cihgîrbûna vê sîstemê karîgerî û bandor li ser berjewendiyên kurd li hemû warekê de dike û metirsiya bihêzbûna desthilata navendî li ser namîne ku carek din kurdan tepeser bike, lê niha kurd metirsî li ser heye ku cînayetên berê bi awayek din li ser de bihên dubare kirin.

**Li halekê de ku hêj rewşa ewlehî û tenahiya Îraqê aloz e, me dît ku hêzên şerker yên Amerîkayê piştî 7 sal mana xwe, Îraq bi cî hiştin. Ev vekişîna hêzan çi tesîr û karîgeriyek li ser rewşa Îraqê bi giştî heye?**

Eva ku em dibînin piştî 6 mehan carê hikûmeta nû pêk nehatiye, ewlehî û aramî cihgîr nebûye, kiryarên terorîstî zêde bûne, li biyava abûrî ve dewletek nine ku pirgramên abûrî dabirêje, xizmetguzariyê pêşkêşî hevwelatiyên xwe bike û stratejiya nehiştin û kêmkirina radeya bêkariyê li pêş xwe bigre û gelek pirojeyên din...., eve bandorek pir xerab û nerênî li ser civaka Îraqê li warên siyasî, aborî, ewlehî û civakî de kiriye. Lê hewce ye em waqi'bînanetir bifikirin ku niha Amerîka siyaseta xwe guhertiye û ev siyaseta girtiye pêşberî xwe, lewre divêt civak û her yek ji takên Îraqê hest bi berpirsatiya zêdetir bikin û vê valahiyê tejî bikin, berevajî wê, desttêwerdana welatên cîran çi weke topbarankirina sînoran, çi weke têkdana ewlehiya wî welatî dê zêdetir be. Bi taybet Îran û Sûriya zêdetir li pey berjewendiyên xwe li Îraqê de digerrin û pirsên Îraqê aloztir û ewlehiya wê jî lawaztir dikin û nemaze warê derûnî û piskolojiya Îraqiyan jî dihiloşînin.

**Gelo ev vekişandina hêzan li cihê xwe de bû? Yan çi sedem û fakterek din li vê vekişandinê de karîger û bitesîr bûn?**

Eva rastiyeke ku Amerîka superhêzek cîhanî ye û tenê bîr ji berjewendiyên xwe dike. Dewleta Amerîka li serdemê şerê sar de pêtirî 40-50 salan rikeberiya Yekêtiya Soviyetê kir daku pêşiya îdeolojiya kumonîstî bigre. Amerîkayê bi xurtkirina îdeolojiya lîberal demokrasiyê karî li Ewropaya Rojhilat de serketinê bidest bixe û piraniya wan welatan bûn bi dost û hevalbendê Amerîkayê û nemaze bûn bi endamê "Nato"yê. Lewre Amerîka xwast vê siyasetê li Rojhilata Navîn de jî bimeşîne, lê dema ku hate nav waqi'a Rojhilata Navîn, zêdeyî 500 Bîlyon dolar mezaxt, (serf kir) 4-5 hezar leşkirên wan hatin kuştin û piştî 7 salan hêj nekariye Îaqê ewle û demokratîk bike, vêca çi bigihîje bi wê ku xwe bi welatek din re mijûl bike û bixwaze demokrasiyê li wan welatan de cihgîr bike. Tu bêjî têçûya wan çiqas be bo Amerîkayê!?

Ji hêla din ve jî em dibînin ku Çîn û welatên Ewropayî bilez geşe dikin, û Amerîka jî nikare her xwe mijûlê şer bike û eva jêre dibe bi pirsgirêk û li warê aborî de



"Jiber ku lîstika siyasî li navbera Îran û Amerîkayê de bi metoda serketina aliyekê ye, li rewşek wiha de her du alî hewil didin ku bi ser aliyê beramber de biserbikevin"

dê tûşî şikestê bibe û dê superhêziya xwe ji dest bide, lewma ye biryarê dide ku hêzên xwe vekişîne û balansa hêzê li Rojhilata Navîn de bi ragirtina welatên şîî û sunî li hemberî hev de biparêze û xwe bi tenê erkê îdare kirina kirîzan bigre stû yê xwe, ne eva ku xwe bibe beşek ji kêşê, şer bike û pare xerc bike. Lewma ger vê hezîneyê bo her yek ji welatên dîktatorî yên deverê berçav bigrîn, divêt Amerîka çiqas din bac bide bo cihgîr kirina demokrasiyê? Li rastî de ev vekişandina hêzan manaya bicih gihandin û encamdana serûber ya erkên xwe li Îraqê de nine.

**Gelek ji karnasên siyasî li ser vê baweriyê ne ku ev vekişandina hêzan pêwendî bi meimûriyetek din ya Amerîkayê ve heye ku ew jî êrîşa ser Îranê ye. Hûn vê yekê çawan analîz dikin?**

Nêrîna han ji rastî û waqi'a vekişandina hêzên Amerîka ve dûr e. Çunku li gor pirojeya "Bîkir Hamilton" hewce ye rol û desttêwerdana Amerîka kêmrir û rola NY û welatên cîran jî zêdetir be. Lewma jî çendîn caran li gel Îranê diyalog kirin! û ger felsefeya vekişandina hêzan, şer li dijî Îranê baya, guftigo li gel Îraqê bo cihgîr kirina ewlehiyê li Îraqê de nedikirin. Lê berevaj, mesele gelek ji vê girîngtir e û Amerîka dikare bi vekişandinê baştir îdareya kirîzên cîhanî bike ku pirograma etomî ya Îranê jî yek ji wan e. Îdareya Pakistanê bi heman şêwe ku welatek xwedî etom e û ger Taliban û îslamiyên tundrew li wî welatî de desthilatê bidest bigrin, metirsiyek zaftir bo ser berjewendiyên Amerîka û Îranê pêk tê. Lewma dixwaze bi îdarekirina kirîzan, pirsgirêkan ji riya dîplomasî û Wezareta Derve çareser bike. Bi taybet derheq Îranê doktorînî Obama bawerî bi pirensîp, dîplomasî û hevkariyên cîhanî hene heta êrîşa leşkirî.

**Mebest ji hevkariyên cîhanî?**

Merem eve dike ku ku li egera êrîşa leşkirî de, hewce ye biryara Civata Ewlekar ya NY li ser be ku bi nirxandina helwesta Çîn, Rûsiya û nemaze Firansayê û bi liberçavgirtina kirîzên niha yên cîhanî, zehmet e biryarek wiha bê dayîn. Êrîşa yekalî weke ya Îraqê jî zehmet e. Lê siyasetek din li hemberî Îranê de heye û dixwaze bi awayek din riftarê bike, dîplomasiyê bikar bîne, giringiyê bide opozîsyona Îranî û guhertinê li hundirê Îranê de pêk bîne.

**Çend rojan berî niha Jeneral Odêrno û balyozê nû yê Amerîka li Îraqê li du ragihandinên cuda de rejîma Îranê bi berpirsiyarê kuştina yek ji çar a leşkirên Amerîka li Îraqê û herweha Komara Îslamî bi astenga ser riya demokrasiyê dan zanîn. Gelo ew kar û kiryarên rejîma Îranê vedigere ser wê ku Îraqek demokratîk bi gef li ser xwe dizane yan şikestdana Amerîka?**

Balyozê nû yê Amerîkayê li Îraqê de pêwendiyek pir xurt bi sunniyan re heye û dixwaze bi awayekê sînorekê ji bo Îranê diyarî bikr û destê rejîmê li Îraqê de kurt bike. Lê eger dewleta Amerîka ew zaniyarî hebin, çima zêdetir guftigo nekiriye yan bi awayek piraktîkî li dijî Îranê neliviyaye?

Jiber ku lîstika siyasî li navbera Îran û Amerîkayê de bi metoda birina aliyekê ye, li rewşek wusa de jî her du alî hewil didin ku bi ser aliyê beramber de serbikevin. Bi taybet xwendin û analîza Îranê bi vî awayî bû ku ger dewleta Îranê bi hêsanî bikare demokrasiyê li Îraqê de cihgîr bike, (wekî wê ku li destpêkê de karî li Efxanistanê de bike) renge gava duyemîn lêdana Îranê be!. Lê piştî borîna 7 salan nekarî vê sîstemê cihgîr bike û li warê siyasî û aborî de tûşî kêşeyan hat. Lewre eqliyetek serihilda ku çi din Amerîka hêza leşkirî bikar nehîne û li ser hêza dîplomasiyê bixebite, eva jî bi qazanca Îran bû. Bi giştî nabe em înkara nifûz û bandora rejîma Îranê li ser civaka Îraqê û bi tayebt şîeyan bikin. nemaze pêwendiya kurdan jî bi Îranê re

xirab nine û kunsolxane li her du bajarên Hewlêr û Solêmaniyê de heye, eva jî bûye sedem ku pêgeha Îranê li Îraqê de bihêztir û kêşeyan bo Amerîkayê biafirîne.

**Vekişîna hêzan çi karîgerî li ser Herêma Kurdistan Federal heye?**

Siyaseta Amerîka eve bû ku demokrasiyê cihgîr û paşan jî vekişandina hêzan bû, wê demê metirsiyek wiha li ser berjewendiyên kurdan nedibû, lê niha ku pirsa madeya 140'ê û deverên veqetiyayî, pirsa yasaya neft û gazê, pirsa bûdceya pêşmerge, guhertinên li destûrê û desttêwerdana welatên cîran û ..., tu yek li berjewendiya kurdan de nine û tenê kurd e ku bê dost û alîgir e û kes nine ku berevaniyê jê bike. Bi taybet metirsiya topbarankirina sînorên Herêma Kurdistanê ji aliyê Îran û Turkiyayê ve her li cih de ye. Lewma ev hemû pirs û aloziyane hevdem li gel vekişîna hêzên Amerîka rewşê aloztir û dê pirsgirêkan ji bo hikûmeta Herêma Kurdistanê pêk bîne.

**Ku waye tirsa êrîşa leşkirî ya desthilata navendî ya Îraqê, dewleta Îran û Turkiyê bi eşkereyî gefê li kurdan bixwet?**

Ger tirsa êrîşa leşkirî jî nebe, egera wê heye ew tiştên ku li destûrê de bidest xistine, kêmtir bihên kirin. Weke ew siyaseta ku li Mûsilê de li hember kurdan de tê peyrew kirin. lê ew metirsiyane dê her berdewam bimînin.

**Çarenivîsa madeya 140'ê û deverên veqetiyayî dê bigîje kur?**

Em dilxweş bûn bi çareseriya aştiyane, demokratîk û destûrî ya madeya 140'ê, lê niha demokrasî û rêzgirtin ji destûrê girîngiya xwe ji dest dane, herweha lîstikên siyasî yên Erebistan, Misir, Turkiye û Îranê û desttêwerdanên wan pirose zehmettir kirine. Ger kurd dixwaze deverên veqetiyayî vegerîne, hewce ye gelek bihêz be. Çunku li cihekê ku kar bi yasa û destûrê nehê kirin, divêt bi hêz bihêkirin ku eva jî vedigere ser hêz û şiyana kurdan. Gelo ev hêze heye ku berbirûyê dewletên cîran û erebî bibe? Gelo şiyana berbirû bûn bi yekîtiya ereben sunne û şîî li ser doza Kerkûkê û deverên din de heye?

Li rewşek wiha de ku erebên sunnî û şîî û dewletên deverê li dijî te bixebitin, kar jî bi destûrê nehê kirin, Amerîka jî hevkariya te neke û Îraqê bicih bihêle, kurd dikare çi bike?

Lê eva ku em hêviya xwe jî bo Kerkûkê û venegerîna wan ji dest bidin, şaş e. Çunku Barzaniyê nemir li dema şerê Eylûlê, li dema bêhêzî û bêhêvîtiya kurdan de amade bû ku şoreşekê bike goriyê Kerkûkê û dev jê berneda. Niha jî bi heman şêwe hewce ye ku kurd tenê bîr ji vegerandin û bidestxistina wan bike. Çunku ji bo maneweya kurd li nav Îraqê de hewce dike ku aboriyek bihêz bi Kerkûkê ve hebe ku bikare xwe pê biparêze. Lewre hewce ye hewl û xebatek micid bo cîbicîkirina madeya 140'ê bihê dayîn.

# Derxistina mamostayên zankoyê pîlanek din a rejîmê



**Dara Natiq**

Pirsa bi zorî xanenişînkirina mamostayên zanko û derxistina wan bi hecetên cur bi cur, girtin û binçarkirina wan ji aliyê dem û dezgehên evlehî û tepeserkar ên rejîma Komara Îslamî a Îranê ve di wan çend Mehên dawî de pêvajoyek bileztir û berfirehtir bi xwe ve girtiye û bûye cihê nigeranî û nerazîbûna civaka navneteweyî û bitaybet civaka hişyar û xwedî zanist û demokrasîxwaziya gelên Îranê.

Bêguman ji her kesekê re rohn û eşkere ye ku siyaseta dijberîkirin û ji holêrakirina neyarên nizamê û kuntirolkirina zanko û navendên zanist û ronakbîriyên Îranê û zal kirina çanda besîcî û guherîna naveroka pirtûkên dersî bi îdeolojiyek berteng a şîe meseb, yek ji stratêjiyên kûr û demdirêj yê destpêka hatineserkara Komara Îslamî a Îranê bû.

Her li ser bingeha vê siyasetê Xumênî di peyama newrozî a xwe di sala 1359'ê de ragihand ku diviya tevgera Îslamî di tewahiya zankoyên Îranê de pêk were û ew mamostayên ku xwediyê îdolojiyekî rojavayî yan jî girêdayî bi bîr û bawerên partiyên Komonîst û marksîstî bin, bihên derxistin û zankoyên Îranê bibin bi mektebek bihêz û paqij bo perwerdehiya îdolojiya Îslamî.

Her di doma meşandina vê siyasetê de, anku piraktîze kirina pêvajoya bizava çandî (Şorişî Ferhengî) de, ji bo her zankoyekî şivrek kesî pêk hat ku erkê sereke ye vê şivrê darêtin û danana pîlanên hewce ji bo olîkirina zankoyan bi îdolojiya Îslamî li ser bingeha parastina nizama dîktator a Komara Îsamî bû.

Her li ser esasa pîlan û cehd û bizavên han wezareta perwerdehî û wezareta çand û elimandinê a rejîmê ji bo besîcîkirina rewş û zirûfa zankoyan û Îslamîkirin û kuntirolkirina wan, dest bi kiryarên weke, cuda kirina kiç û kuran li xwendingeh û qedexekirina xwandekarên di hin rişteyên weke Endazyarî, Zanist, Teknîkî û Kişawerzî û herwisa guherîna naveroka pirtûkên dersî kirin lê xebat bi dijî çanda rojava û girêdana sîstema seranser a zankoyan bi sîstemên kevneşop yên "Hewzeya Îlmî a Qum" û kuntirolkirina zankoyan bû sedemê vê çendê ku parek berçav ji Mamosta û mirovên xwedî zanist welatê Îranê bi cih bihêlin û di encam de civaka Îranê roj li pey rojê ji karwanê pêşketina zanist û teknîkî ve pare ma.

Di wir de ya ku cihê baldanê ye ewa ye ku serbarê tev zext û givaş û asteng û girêpêçkên ku ji bo kintirolkirina zanko û navendên zanistî yên welat ji aliyê navendên tepeserkar ên Komara Îslamî ve dihate meşandin, pêvajoya demokrasî û azadîxwaziya a xwandekaran di Îranê de roj li rojê zêdetir geşe dike û zanko yê bûne çepera berxwedan û cihê birêvecûna bi şîpel a meşên nerazîbûnê li hember siyasetên biyom û azadîkuj û zanistkuje Komara Îslamî a Îranê.

Liv û bizavên azadîxwazane yên xwandekarên hişyar û xwedî zanist di zankoyan de û tagirî û rola berçav û bi bandor a wan di xurtkirin û berfirehtirkirina tevger û meşên nerazîtiyê ên piştî ragehandinên encama maşkanêya bi nave hilbijartina gera 10' mîn, sitûnên bingehîn rejîmê hejandin û tirs û xofek mezin xistine nava dilê karbidestên rejîmê û nemaze Ehmedînejad û Xamineyî.

Ji aliyekî din ve berfirehtirbûna tevgera kesk û piştgîrîkirina beşek berçav ji mamosta û xwandekarên zankoyên Îranê ji vê tevgerê û rêberên vê bizavê anku Kerobî û Mûsewî, bûye sedemê tûrebûn û nerihetiya karbidestên nîzamê ku di encam de bû sebebê helwêst û dijkiryarên tundtir ji aliyê navendên tepeserkar ên rejîmê li hember derxistin û veguhastina Mamostayên zanko û girtin û kuştin û îşkencekirina xwendekaran û herwisan kuntirolkirina zanko û navendên zanistî.



Kamran Danişcû, Wezîrê Ilûmê yê Komara Îslamî a Îranê

Di çend rojîn derbasbûyî de Kamran Danişcû, Wezîrê Êlûm yê Îranê ragihand ku, ev zankoyên ku li dijî çanda besîc bin divêt tevî axê bihên yekrastkirin. Navbirî herwisan zêde kir ku zankoyên Îranê ne cihê wan mamostayanin ku bixwazin dijî nizama Komara Îslamî bilivin û mêjiyê xwandekaran bi çanda rojavayî bişon. Navbirî herwisan di rê û resma zankoya "Ilm û Senet" di heyamê derbasbûyî de ragihand, ew zankoyên ku heneku bi ferhenga Besîc dikin, yan ger zankoyek hebe ku têde dengê baya nîvero bilind nebe, bi hinceta vê çendê ku zirarê digehîne kilasên dersî, yan zankoyek hebe ku berevajî rewişt û tîtalên nizamê bilive, ya baş ewe ku ew zanko tu nebin, ji berku gava zankoyek han hebe, gelên Îranê, xwandekar, mamosta û karkirên zankoyê dê bi Îradeya xwe a mekteba Îslamî ji nav bibin.

Lê bi berhevdan û nêrînek kurt derheq wan pirs û bûyerên ku me îşare pêkir, mirov digehîne vê encamê ku derxistina mamostayên zanko û bi zorî xanenişînkirina mamostayan, berhema berfirehtir bûna tevgera azadîxwazane û jordeçûna asta hişyarî û zanistî a xwandekaran û ji aliyekî din ve tirs û xofa nizamê ji birêveçûna berfireh a meşên nerazîbûnê ji zankoyan û xurtirbûna tevgera demokrasîxwazî di îranê de ye.

RONÎ

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdulla Hicab**

# Dawî an destpêk cenabê Serok!

Serokkomarê DYA, Barack Obama, di axaftina xwe ya roja çarşemiyê de ji bo gelê Amerîka, bi awayê fermî bi dawî hatina "Operasiyona Rizgarkirina Îraqê" ragehand û da xuya kirin ku ji niha û pêve Îraqî bi xwe wê ewlekariya welatê xwe bi dest ve bigrin. Li gor serokkomar, ji koma giştî ya 150 000 serbazên DYA li Îraqê, 100 000 kes ji Îraqê derketine û 50 000 serbazên ku dimînin, wê ji niha û pêve perweredeyê bidin Supaya Îraqê û xwe tev li karubarên hundirê welat nakin.

Li gor axaftina Obama, êdî şerê Îraqê ji aliyê leşkerê DYA ve bi dawî hatiye û ji niha û pêve erka amerîkaiyan li Îraqê "xebat ji bo baştir kirina pêşeroja Îraqiyane. Bi wî awayî, di fermiyetê de, erka leşkeriye Supayê DYA, 7 sal piştî destpêkirina şer, dana 4 400 kuştî û mesrefa pitir ji 1000 miliyar dollar li Îraqê bi dawî tê. Lê gelo bi wê ferman an bi wê daxuyaniyê re, şerê li Îraqê, an karê supayê DYA li Îraqê bi dawî tê? Leşkerê Amerîka çima kete Îraqê, di wan 7 salan de çi kir, çi destket bi dest xist û niha ku operasyonan bi dawî tîne, rewşa Îraqê ber bi ku ve diçe?

Nayê texmîn kirin ku amadebûna 50 hezar serbazên Amerîka ku heya ber binê guhên xwe bi çekên herî modern teyar in li Îraqê, tenê ji bo perwerde kirina supayê nûye welat be. Binkeyên hêzên Amerîka ji navendên leşkeriye Îraqê cuda ne. Ew yek dibe heger ku leşkerê Amerîka her weke "dema şer" ji hêrişên leşkeriye dijberên Amerîka û alîgirên rêjîma berê re armancên hêrişan bin. Her weha dema leşkerê Îraqê dikeve tengasiyê, her gava ku nekarî li hember êrîşên dijberên xwe bi ser bikeve, wê neçar bimîne ku daxwaza alîkariyê ji serbazên Amerîka bike. Di rewşek wisan de îmkan nîne ku paşmayên leşkerê Amerîka li Îraqê ji şer û pevçûnên leşkerî parastî bin û xwe tev li şerê Îraqiyan bihevre nekin.

Armanca serke ya hêzên Amerîka ji ketina Îraqê, di gel guherîna rêjîma deselatdar, damezirandina sîstemek nû ya siyasî bû ku li gor siyaseta Amerîka li Rojhilata Navîn tev bigere. Her çend armancên ragehandî di duktrîna siyasiye Amerîka di derbarê Îraqê de bi awayek din hatin ragehandin û weha hatibûn diyar kirin:

- Qut kirina destên rêjîma Seddam ji depoyên çekên komkujiyê ku li gor gotina Koşka Sipî Îraqê bi weşartî çê dikir û bi pêş dixist.

Bi dawî anîna piştgiriya Îraq ji rêkxistinên terorîstî yên girêdayî bi tevgera Al- Qaîde re ku li gor amerîkiyan Îraq amade bû çekên xwe yên komkujiye bixe ber destê wan. Ew yek jî ji bo ewlekariya netewiye Amerîka weke tehdîdek cidî dihat hesibandin.

- Rizgar kirina xelkê Îraqê li dest rêjîmek dîktator ku li hember xelkê xwe yê bê berevan çekên kîmyawî bikar anîbû.

Di wan 7 salên ku hêzên Amerîka li îraqê bûn, ji aliyekê ve li ber hin şaşî û kêmasiyên ku bi kiryar tûş dibûn û ji aliyek din ve ji ber stratêjiya şaş ya serleşker û fermandarên Amerîkayî li heremê, baweriyek wisan li Îraqê çê nebû ku leşkerê Amerîka ji xelkê welat re ewlekarî u asayişê bîne. Berewajî operasyonên xweser û bê kuntrole hêzên girêdayî bi kompaniyên taybete ewlekariyê weke "Blackwater" re rewşek wisan li Îraqê anîbû pêş ku baweriya bi leşkerê Amerîka re, weke hêzên parêzvanê ewlekariyê pir kêm bibû.

Li aliyek din ve, piştî 7 sal şer, leşkerê Amerîka nekarî rêjimek nû ya xwegir û xelkî li Îraqê dabimezrîne. Hêzên Amerîka her weha nekarîn bi ser alîgirên rêjîma pêşîn de bi tewayî bi ser bikevin. Bi hebûna xurt ya hêzên Amerîka li Îraqê re jî, hê niha jî kuntrola hin deverên Îraqê bi tewayî neketiye dest supaya nû yê Îraqê. Hêzên Sunî deselata sereke li Romadî, beşek zor li Mûsil û herêmên navîne Îraqê hene. Li başûrê Îraqê, hêzên Şîe ji hev belav in û her yek ji firaksyonên Bedr, Sedr û Meclîs E`ila xwediyê leşker û hêzên taybete xwe ne. Bi kinî, leşkerê Amerîka nekarî leşkerek hevgirtî ji bo Îraqê ava bike ku niha piştî kêmbûna huzûra wan, bikare ewlekariya Îraqê biparêze.

Di eniya siyasî de Amerîka karî di wan 7 salan de rê ji bo avakirina deselatek nû xweş bike. Lê wê deselata nû tu gav nekarî hemû pêkhateyên siyasî, etnîkî û neteweiye Îraqê tev li pêvajoya siyasî bike. Ji hindê jî zêdetir, sîstema nû tu gav nekarî weke sîstemek berpirsyar ku hemû xelkê welat bi yek çav temaşe bike tev bigere. Operasyonên tolstandinê, kuştinên sîstematîk li dijî aliyên ku xweyî nebûn, bikaranîna polîs û deselatê ji bo xizmeta hizbî û etnîkî, bê seroberiya darayî û bi dehan û sedan kêmasî û ladanên din, dijberiyên hundirîn li Îraqê niha ji berê pitir kirine. Serweyî wan kêmasiyan, yasaya nû ya Îraqê hin kêmasiyên cidî di warê parastina mafê mirovan u demokrasiyê de hene. Ew jî astengiyek din e li ser riya ava kirina sîstemek ciyê baweriyê. Di gel ku başûrê Kurdistan rewşek xweser ya cuda ji rewşa siyasiyê Îraqê heye ku bi rewşa Îraqê re nayê muqayese kirin, lê aloziya siyasî li hemû Îraqê xuya ye. Serneketina fraksyonên siyasiye Îraqê di hewldana ji bo avakirina hukûmeta nû de, 5 heyv piştî hilbijartinên Parlemanê, bi xwe nîşan dide ku sîstema nû ya Îraqê çiqas di çareser kirina pirsgirêkên welat de qels e. Lewma nayê bawer kirin ku sîstema nû ya welat amade be bi awayek serbixwe kar bike û bikare ji pirsên siyasiye welat û bi taybet ji ewlekarî û asayişa Îraqê re çareyekê bibîne.



Paşvekêşiya hêzên Amerîka ji Îraqê, pêwendî bi rewşa hundirê Îraqê ve nîne. Rastî ew e ku ev pêgav bi tenê kiryarek sembolîk e ku Obama niha pêwîstî pê heye ji bo ku ji gelê Amerîka re wisan nîşan bide ku sozên di dema hilbijartinê de dabû bi cî tîne. Xesarên hêzên Amerîka li Îraqê ji ya ku Amerîkiyan bi xwe hêvî dikir çend qat zêdetir bûye. Barê girane mesrefa şer li ser bûdceya Amerîka, bi awayek raste rast karîgerî li ser rewşa navxwe ye welat heye.

Di gel kuntrol kirina qeyrana abûrî û pêşî girtin ji tevçûna sîstema bankî, lê Amerîkayê di dema serokkomariya Obama de nekarî pirsgirêka bêkariyê çareser bike. Rewşa abûrî hê ne di astekê de ye ku kêmasiya bûdceyê dagire. Xelkê amerîka meraq dikin ku gelo Îraqî wê rojekê bikaribin li gor heza Amerîka sîstemek nû ava bikin û her roj gumana wan di wî barî ve zêde dibe. Heta leşkerê Amerîka jî di rewşek wisan de nejidil tevli şerê Amerîka li Îraqê dibû. Bi kurtî Obama ji bo kuntrola lêgerên hundrî Amerîka pewîstî bi manovrek siyasî ya nû hebû. Pêgava sembolîk ya paşvekêşî li Îraqê bi wê rewşê ve girêdaiye. Ji wê bi der carê zû ye ku mirov li benda bi dawî bûna şer û nearamiyan li Îraqê be.

Doma nûçeya:

## Gotûbêj li pêxema aştiyê, Roja Quds jî li pêxema şer û xwînrêjiyê

Di nav welatên deverê de, Komara Îslamî a Îranê bi awayek eşkere, nerazîtiya xwe li hember pêşxistina aştiyê û ragirtina şerê nîşan daye û Ehmedînejad di rêûresma roja "Qudsê" de got: " çarenivîsa Felestînê ji aliyê berxwedaniya xelkê wî welatî tê diyarîkirin, ne li Waşîngton, Parîs û Lendenê".

Her di vê pêwendiyê de dewleta xwebirêveber a Felestînê daxuyaniyek der kir û got:

kesê ku nûnerê xelkê Îranê nine û di hilbijartinan de firtûfêl kiriye û xelkê Îranê tepeser dike û desthilat dizîye, ne dikare û ne mafê vê hindê heye ku li ser Felestîn û Serokkomarê wê biaxive".

Ebo ridîne di wê daxûyaniyê de rû li Ehmedînijad got" kesê ku nûnerê xelkê Îranê nine û di hilbijartinan de fêl kiriye û xelkê Îranê tepeser dike û desthilat dizîye, nikare di warê Felestîn û Serokkomarê wê biafive".

Ehmedînijad roj îna derbazbûyî di rê û resma "Quds" ê de bi rexne ji desthilatdarên Felestînê gotibû " çarenivîsa Felestînê ji aliyê xweragiriya xelkê wî welatî tê diyarîkirin, ne li Waşîngton, Parîs û Lendenê".

## Dorpêçên Nû Ên Japonê Li Dijî Îranê

Dewleta Japonê roja înê, 03.09.2010'an, li ser daxwaza Amerîkayê, durpêçên nû li dijî Îranê seba bernameyên etomî ên vî welatî, berfirehtir kir. Eva jî di halekê de ye ku Tukiyo tevî Îranê bazirganiyên niftê heye.

Japon di meha Îlon a îsal de û pêka biryarnameya 1929 a Şêwra Ewlehiyê, birêvebirina durpêçên nû li dijî Îranê qebûl kiribû, lê Amerîka ev welate hay da ku weke Ewrûpayê durpêçên zêde li dijî Îranê birêve bibe.

Îran çaremîn çavkaniya kirîna neftê ji bo Japonê, piştî Eerebistan, Emaret û Qeterê ye. Di sala 2009'an de Japon rojane 421 hezar bermîl nift ji Îranê dikirî.

Durpêçên nû ên Japonê li dijî Îranê, kêmkirina têkiliyên bazirganî tevî bankên rejîma Îranê û sekinandina sermiyandanîn di beşa enerjî li xwe digre. Dewleta Japonê herwiha di durpêçên nû de samana 88 sazî û herwiha 24 kesan ku digel bernameyên etomî ên Îranê de pêwendiyên bazirganî hebûn, dest biserde girt. Ev kesane herwiha nikarin hatinûçûna Japonê bikin.

Japon serbarê hebûa pêwendiyên berfireh ên bazirganî tevî Îranê, beriya niha jî bona sepandina durpêçan bo ser Îranê, dest bi ser saman û heyîna 75 kompaniya û 41 kesan de girtibû.

**Rojev**

## Dewsa Îranê li hemû kirîzên deverê de

**Cirî Sîb**

**W: Arîn**

Barak Obama, Serokkomarê Amerîkayê li axaftina xwe ya derheqê Îraqê de, derketina hêzên şerker yên Amerîka ji Îraqê weke guhertinek mezin da zanîn, lê gotinên wî li heman hal de nîşan ji bûyerek mezintir in. Xala balkêş li siyaseta mewcûd bi nisbet Îraqê, eve ku Obama niha mijûlê pêdeçûn bi ser çar aliyên bingehîn li siyaseta derve ya Amerîkayê de ye. Îraq, Efxanistan, pirsa Filistîn û Îsraîlê û herweha Îranê. Rayedarên dewletî wusa difikirin ku şansê serketina li her yek ji biyavan de zêdetir kirine û renge jî durust bifikirin, lê egera şikesta li Rojhilata Navîn de jî tim heye.

Obama vê kilîta pêdeçûnê ya siyaseta Amerîka li Rojhilata Navîn de li halekê de dişidîne ku ji wê weke alavek bo jinavbirina dilkutok û kêşeyên din û herweha zom û tekezkirin li ser mijara Îranê û hemû hevalbendên wê mifahê bistîne.

Cuda ji wê ku şansê serketina vê pêdeçûna Obama çiqas be, hêlek diyarîkirî a hevbeş li dor Îraq, Efxanistan û dewleta xwebirêvebir ya Filistînê heye. Li her yek ji wan biyavan de, armanca girîng eve ku kêşeyan bidawî bîne heya ku derfeta zom û pêregihştina zêdetir bi ser kirîza mezin a Îranê û hevalbendên îslamîst, radîkal û tundajo yên Îranê pêk were.

Êrîşa dewleta Bûş bi Îraqê jî li sala 2003'an de ji ber nîgeraniyên mewcûd ji gefa desthebûna tundajotiya Elqaîdê bi rejîmek hov ji bo bidestxistina çekên komkuj piştî êrîşa 11' Septamberê bû. Ji wê demê ve ev gef derbasî riyek cuda bûye. Elqaîde niha berbilav bûye û metirsiya wê ji ber piştevaniya welatek bihêz ji wê nine, belkî ji ber reh û rîşal dakutîn li welatên weke Pakistan, Efxanistan, Yemen û Somaliyê ye. Li heman demê de jî gefên ji ber hewlên dewletek dujmin û hov ji bo bidestxistina çekên komkuj li holê de ye. Lê ew gef ji Îraqê naxuşikin(nawezelin), belkî çavkaniya wê ji welatê cîran, anku Îran û hevalbendên tundajo yên wê weke Hizbula, Hemas û girûpên din yên li bin tesîra rejîma Îranê de ne.

Manovrên siyasî yên Amerîkayê li deverê de ku ji yekem gera serkomariya Bûş de destpê kirin û heta du salên yekem yên desthilatdariya Obama dom hebûye û niha bi derketina hêzan ji Îraqê bidawî tê, piranî nîşan ji hewildan ji bo hevahengî bi waqi'yetên nû heye.

Wekî diyar vekişîna hêzan ji Îraqê weke hewlek ji bo kêmkirina zirar û xesarên li ser hêzên Amerîka û îsbatkirina vê rastiyê ye ku Amerîka şiyana damezrandina welatên ewle, sekolar û demokratîk li berbirûbûna bi hêzên tundajo û pawanxwaz heye. Li heman demê de zêdekirina hêzan li Efxanistanê de cehd û xebatek e ji bo îsbatkirina vê yekê li serzemînekê de ku armanca gefên zêdetir ji aliyê îslamîstên tundajo û radîkal e û navberek dûr û dirêj heya pêkanîna dewletek nawendî a tenah, ewle û dost bi rojava re heye.

Destpêkirina gotûbêjên Îsraîl û Filistînê di heftiya borî de, bi mêvandariya şîva Obama ji Binyamîn Natanyaho, Serokwezîrê Îsraîlê û Mehmûd Ebas, Serokê hikûmeta xwebirêvebir a Felistînê, şeva Çarşamiyê dest pêkir, hewlek e ji bo kêmkirina destpêka teqîna vê kirîza hertimî, û di dawiyê de dewlet hewlên xwe ji bo pêkanîna zextên aborî bo ser Îranê dê bidomîne daku bi awayekê rejîma Îranê neçar bi paşdekişyana li ser domandina bernameya etomî bike. Hewlên han bi pejirandina biryarnameya nû a Şêwra Ewlekar a ser bi Netewên Yekbûyî di destpêka havîna îsal de dest pêkir.

Lê her yek ji kar û hereketên Amerîkayê bi nîgeraniyên heyî li ser Îranê û rol û desthilata wî welatî di herêmê de hatiye girêdan û bi hevre pêwendî hene. Di Îraqê de hewil ji bo cîgirkirina desthilatê di dewleta navendî bona pêşîgirtin ji berfirehbûna desttêwerdanên Îranê tê dayîn. Di Efxanistanê de jî hewla rojavayê bona anîne serkara bisilmanên nermrew ji bo pêşîgirtin ji derketina desthiladarên tundajo ên weke Îranê ye.

Destpêka dubare a gotûbêjên aştiyane netenê hewlek e ji bo pêkanîna aştiyê di navbera Îsraîl û Felistînê, belkî gavek e bona nehiştina pirsa Felistînê û çareserkirina nîgeraniyên rêberên Erebî. Ev rêberane dibêjin kirîza Felistînê bûye sebebê turebûna xelkên welatên wan û di encam de bandor xistiye ser şiyanên wan bo hevkarîkirin tevî Amerîkayê derheq kuntirolkirina zêdexwaziyên etomî ên Îranê. Ev pirosya bandorê dixe ser kêmbûna hêza hevpeymanên rejîmê di bizava Hemas de. Kesên ku li hewla jar û lawazkrina hêza Mehmûd Ebas û alîgirên wî ên nermrew de ne. Helbet renge hemû ev liv û bizavane tevî bi pirsgirêk û astengan berbirû bibe. Ev valahiya ku piştî çûna hêzên Amerîkayî di Îraqê de bicî maye, dikare bibe sebebê zêdebûna desthilat û destavêtinên rejîma Îranê. Herwiha renge gotûbêjên bi Felistîniyan seba avahîçêkirinên nû ên Îsraîlê digel şikestê berbirû be û bibe sebebê vebûna destê tundajoyên dostê Îranê di nava Hemas û Hizbulahê de. Lewra metirsiyên pêdeçûna bi helwest û siyaseta Obama, bi qasî derfetên pêşiya wî zaf in. Nûçeya baş eve ku Serokkomar di qonaxekê de li ser kar e ku ji aliyê herdu partiyan ve tê piştevanîkirin. Dema ku bernameyên darêtî bi wî awayî ku pêşbînî kirine pêşve neçin, wî piştevaniyek han hewce ye.

**Çavkanî: Wall Stirît Jornal**

# Kuştargeh yan girtîgeh?



Ceifer Muberşirniya

Felsefeya çêkirina girtîgehan di cîhana îro de, vedigere bo parastina ewlehiya jiyana mirovan ku yek ji erkê dewletan e.

Lewra em dikarin bibêjin ku girtîgeh ne ji bo mirovên asayî û bêsûç hatiye çêkirin. Belkî girtîgeh bona wan kesan hatiye avakirin ku berevajiyê yasa û pîvanên civakî tevdigerin û kiryarên wan derbe li berjewendiya xwedî tawanbar, endam û rûmetê civakê dide. Lê dîsan eva ne bi vê wateyê ye ku nabe derfet bi wan mirovan were dan ku tûşî şaşiyan dibin û dikevin girtîgehan, belkî di cîhana îro de ku gişt dewletên mirovdost û parêzerê mafê mirovan hewil didin bihayên mirovî bilind ragirin û cîhanek hêjayî wan ava bikin, kesên tawanbar jî derfek bi wan tê dan û cîhana mirvdost a îro li ser vê bawerê ye ku gişt mirov hêjayî vê yekê ne ku derfeta pêdeçûnkirin bi ser xwe bi wan were dan.

Lê di hin welatan de bi vî awayî mêzeyî mirovan nakin, nemaze welatên dîktator ku yasayên wan tu hevahengiyek tevî yasayên navnetewî nîne û zagonên wan li ser bingehek fikrî a neserdemiyane hatiye avakirin ku bersivderê eqlaniyeta civaka îro nîne. Bo mînak welatên weke Îranê ku yasaya wê li ser bingeha binav ola Îslamê hatiye avakirin, têde mezintirîn bêhurmetiyan bi kesayetiya mirovan dikin, nemaze nêrîna wan derheq jinan ku weke mirovek nekemilî tê mêzekirin.

Girtîgeh di rastî de cihek e ku dibe sebeb tawanbar têde bîr ji kiryarên xwe bike û ji şaşiyên xwe bihese û hewla dûbarekirina wan kiryarên şaş nede.

Di Îranê de ku rejîmek bi navê rejîma Îslamî têde desthilatdar e, bo parastina desthilata xwe bi taybetî di riftarkirin ligel girtiyan de tu yasayeke navnetewî û heta îslamî liberçav nagire.

Di heyamê 31 salên derbazbûyî de girtîgehên Komara Îslamî pirr bûye ji girtiyên siyasî, çalakên medenî, çalakên mafên jinan û dilsojên civakê ku ger pêka yasayên navnetewî werin dadgehîkirin, ne tenê bêtawan in, belkî mirovên han weke pêşrew û dilsojên gel tên nasîn û cihê rêz û hurmetê ne.






Bona şîrovekirinek pêtir, emê basa hinek ji riftar û liv û tevgera beşa dadwerî a Komara Îslamî a Îranê bi girtiyan re bikin.

Berî her tiştî, girtî bi çi tawanekê hatibe girtin ji bo Komara Îslamî tu ferq nake. Bo mînak, ligor ezmûna girtiyan û bi gotina piraniya wan bi taybetî girtiyên siyasî û sivîl, di gitîgehên Komara Îslamî de gişt girtî bihevre ne û bendên wan ji hevdu ne cuda ne. Yanî girtiyên siyasî, sivîl û diz û mirovkuj hemû bihev re di bendekê de ne. Di halekê de ku girtiyên siyasî û çalakên sivîl kesayetiya wan gellek digel kesayetiya mirovên tawanbar cud ye û di bingeh de qet nabe mirovên hankî seba çalakiyên xwe ku ji bo rehetî û pêkanîna jiyanek baştir bo xelkê û xizmetkirin bi wan xebatê dikin, werin girtin, lê dema ku tên girtin jî, aliyê kêm nabe tevlî girtiyên ku tûşî tawanên naşîrîn bûne werin kirin. Çimku ev kiryara han rasterast bi armanca terora zêdetir a kesayetiya wan û şikandina wan di warê hundurî de tê encamdan. Pirsa duyem mesela pêranegihîştin di warê paqijî û lênepirsîna nesaxan di girtîgehan de ye ku îrorojê pirsek mezin a girtiyan e ku gelek ji zîndanî seba wê xemsariyê jiyana xwe ji dest didin. Bo mînak em dikarin îşare bi mirina **Kawe Kurdmuqedem**, girtiyê siyasî ê xelkê bajarê Şinoyê di girtîgeha bajarê Urmiyê di heftiya borî de bikin ku seba nexweşiyê canê xwe ji dest da. Kawe Kurdmuqedem yek ji wan sedan kesan e ku bi egera xemsariya bi enqest a berpirsên girtîgehên rejîma Komara Îslamî canê xwe ji dest da.

Îşkencekirina girtiyan yek ji pirsên din e ku hinek caran canê girtiyan distîne. Lê rejîm bona ewê ku faylên wan eşkere nebe, û di asta navnetewî de rexneyên zêdetir nehê ser wan, dema kesekî\ê nemaze girtiyên siyasî didaliqîne, amade nîne termê wan teslîmê malbatên wan bike. Çimku ev rejîma hov bi terzekê însanan îşkencê dike ku nîşaneyên îşkencê heya midehek zêde û hinek nîşane heta heta li ser bedenê girtiyan wunda nabe. Bo mînak em dikarin îşare bi Şehîd Ferzad Kemanger û hevalên wî bikin ku rejîma Îranê amade nebû termê wan teslîmê malbatên wan bike.

Gireva birçîbûnê di bingeh de weke diyarîkirina nerazîbûnê derheq kêmasiyên girtîgehê û şêwaza riftarkirina nobedarên zîndanê, ji aliyê girtiya ve tê encamdan. Ew kare di girtîgehên Komara Îslamî de jî bi taybetî ji aliyê girtiyên siyasî û çalakên medenî ve tên birêvebirin, lê karê han heya astê mirinê jî diçe, lê dîsan desthilatdarên girtîgehên Komara Îslamî guh nadin wan û ewa jî dibe sebebê xirabûna rewşa tendurustiya girtiyan. Bo mînak Rehîm Reşî ku niha rewşa wî a saxlemê seba girevgirtin ji xwarinê pirr xerab e.

Meseleyek din şêwaza îtirafsitandinê ye ji rêya bikaranîna rêbazên dûr ji exlaqên mirovî, ku derheq girtiyan nemaze girtiyên jin bikar tê. Weke îşkenceyên cism, piskolojî û destdirêjiya cinsî. Her di vê derheqê de em dikarin îşare bi îtirafwergirtin ji Ruya Tilûyî, çalaka sivîl ya Kurd bikin ku pêka gotina wê bi xwe ku rasterast li ser televîziyona VOA'ê bas dikir, ji aliyê hêzên rejîma Îranê ve di girtîgehê de destrêjiya cinsî bi ser hatibû kirin û gef lê hatibû xwarin ku ger car din dest bide çalakiyên medenî yan karê siyasî bike, dê fîlma destrêjîkirin bi ser de, eşkere bikin. Yan neçarkirina girtiyan bona îtirafkirin di pişt şaşeya mediyayên dewletî bona lêbandina raya giştî ku yek ji wan metodên îtirafsitandinê ye. Bo mînak îtirafwergirtin ji girtiyên ku piştî hilbijartina devra dehem a serkkomariyê hatibûn girtin.

Rejîma Komara Îslamî xwe bi nûnerê xwedê li ser erdê dizane û di çarçoveya îdelojiya rejîma Komara Îslamî a Îranê de her kesek ku rexne ji kiryar û hizrîna rejîmê bigire, bi buxtana "şer tevî xwedê" tê mehkumkirin û cezayê kesên han jî bal desthilatdarên rejîmê, darvekirin e ku gişt çalakên sivîl, siyasî û mafê jinan bi xwe ve digire.

Di encam de em digîjin vê encamê ku tenê di sîstemek demokrat û sekolar de ye ku mirov dikarin bibin xwediyê maf û azadiyên xwe û tu kes seba hebûna rayek cuda yan rexnegirtinekê nahê dadgehîkirin.

# Madeyên Sirker Li Îranê!
# Belayek Ji Bo Xelkê, Neimetek Ji Bo Rejîmê

**Leyla Seadetî**
**W: Hemîd Muxtarî**

Li destpêka îsal de, cîgirê Navenda Civakî û Parastinê a ser bi Saziya Tendurustiya Tehranê, bi nigeranî ve bi nûçegihanan ragihand: Heya du salên din em dê tevî pirsa kêmasiya textan ji bo nexweşên derûnî - piskolojîkî di nexweşxaneyên welat de berbirû bin. Wî herwiha zêde kir: Mixabin berpirsên civakî ên rejîmê, pirsa tûşbûna ciwanan bi madeya sirker a bi navê "şîşe" micid nagirin, di halekê de ku heya du salên din emê tevî pirsa nexweşên rewanî ên ku bengdarê madeya sirker a bi navê "şîşe" ne, berbirû bin. Seba wê ku tu dermanek bona çareserkirina nexweşiya wan cure bengdaran nîne, em nizanin divêt çi bikin? Gotinên vî berpirsê civakî di halekê de bi nîgeranî ve tê îlan kirin ku her di çend salên borî de, karnasan derheq tûşbûna ciwanan bi madeya sirker a bi navê "kirak" agehdarî dabûne berpirsan. Lê mixabin tu berpirsekî rejîma Komara Îslamî a Îranê nîne ku guhê xwe bide wan kirîzan, ev madeye bilez di nava ciwanan de belav bû û pêşengî ji madeyên weke "tiryak" û "hirûyîn"ê sitand û bû bi sereketirîn made bo kişandin û bikaranînê di Îranê de. Niha jî 1-2 sal dibe ku seba erzanbûna madeya "şîşe", ev madeya diçe ku cihê kirakê bigire.

**- 25 milyon kes tûşî bengdariyê bûne:**

Wan rojane di Îranê de gellek yasayên çandî û civakî tên pejirandin, yan tên birêvebirin. Birêveçûna biryarên pêwendîdar bi modela pirça xortan, modela kincên ciwanan, rengê pirça keçan û... ji mînakên herî zindî di vê derheqê de ne û ji aliyê gellek ji melayên olî ve tekez li ser birêvebirna wê hatiye kirin. Yasayên han di demekê de birêve diçin ku hêj dewlet û meclîsê nekariye yasayên tund û qahîm derheq berhemanîn û qaçaxkirina madeyên sirker ên pîşeyî weke "şîşe" bipejirîn in. Nebûna yasayên han ne tenê jiyana ciwanên me xistiye metirsiyê, belkî gellek malbat ji hevdu belav kirine û têk daye. Di destpêka sala 1388 a Rojî di konferansa xebat li dijî bengdariyê ku di navenda xebat li dijî madeyên sirker anku "NACA" ê, birêve çû, yek ji mamostayên zanîngehê û karnasê warê bengdariyê çû pişt tirîbûnê û got: Di Îranê de 25 milyon kes bi awayên rasterast û nerasterast tûşî madeyên sirker in. Wê demê îlankirina vê serhejnmariyê bû sebebê nîşandana helwêstê ji aliyê berpirsên navenda xebat li dijî madyên sirker û berpirsê hêzên întîzamî çendîn caran bi berdewamî bengdarên welatê Îranê kêmtir ji du milyon kesan îlan kir û ragihand ku bi xweşî ve di çend salên borî de û bi avakirina **kampaynên** destberdan û terkkirna madeyên sirker, hejmara bengdarên tûşbûyî bi madeyên han kêmtir kirine. Eva jî di halekê de ye ku di çend salên borî de pêşkêşnekirina serhejmariyên rast û cihê baweriyê ji aliyê berpirsan ve, bûye sebebê pêkhatina nîqaşê di navbera karnas û berpirsan. Heta hinek ji çalakên warê bengdariyê, berpirsan tawanbar bi tûşbûn û bengdarbûna ciwanan bi madeyên sirker dikin.

Serbarê wê ku tu serhejmariyek ron û dirust derheq hejmara bengdaran di welat de tune, lê karnas dibêjin zêdeyî yek ji sêye bengdaran, tûşî madeya şîşe hatine û vê madeyê dikîşînin. Lewra seba wê ku bengdarbûn bi vê madeyê pir metirsîdar e, divêt em di demek zû de çavnihêriya bûyerek dilêş di civakê de bin.

**-Berhemanîna Zêdetir, Nirxek Erzantir:**

Zêdeyî 4 salan e ku siyaseta giştî a rejîmê di pêwendî tevî xebat li dijî madeyên sirker hatiye îlankirin. Lê hêj yasa tevî siyasetên wan nehatiye rêkxistin û kêmasiyên zêde derheq pêşîgirtin ji berhemanîn, firotin, şandin û qaçaxkirina madeyên sirker ên pîşeyî hene. Ger niha li Îranê çend girem madeya şîşe bal kesekê hebe û ji aliyê polîs ve bê girtin, dê tenê bi 50 hezar tûmen pere were cirîmekirin. Nebûna yasayekê derheq kirîn û firotina madeya şîşe bûye sebeb ku hem serokên bandên berhemanîna şîşê bê tirs û bêxem karên xwe bidomînin û dema ku tên girtin jî bi dana rehînê azad bin û hem bi belavkirina vê madeyê di bajaran de û kêmkirian nirxa wê, hejmarek zêde ji ciwanan bengdarê vê madeyê bikin. Eva jî di halekê de ye ku yasaya xebat li dijî madeyên sirker di komîsyona dadwerî a civata diyarîkirina berjewendiyên rejîmê, tep û tozê dixwe û midehek zêde ye ku dibêjin ev yasaye hinde nemaye ku were pejirandin. Lê hêj qaçaxçiyên madeyên sirker bi terzek azad belavkirina madeyên sirker di bajarên biçûk û mezin de didomînin. Li gor serhejmariya navenda xebat li dijî madeyên sirker pêvajoya jordeçûna berhemanîn û bikaranîna madeya şîşe bi qasekê ye ku di sala 2007'an de, 42,86 kg şîşe, di sala 2008'an, 265kg, di sala 2009'an de, 951 kg, û di 45 rojên sala 1389 a rojî de 251kg şîşe ji aliyê hêzên întîzamî ên rejîmê eşkere bûne û heya niha 2000 qaçaxçiyên madeya şîşe jî hatine destbiserkirin û di demek zû de jî azad bûne.

**-Şerê Şanoyî(nimayişî):**

Kirîza bengdariyê piştî bêkariyê duyemîn kirîza Îranê ye û herçiqas dem derbaz dibe, hejmara wan zêde dibe. Lê serbarê vê yekê heya niha tu dezgehek fermî û yasadaner a welatê bona çareseriya vê kirîzê tu gavek micid neavêtiye. Her yek ji van dezgehan aliyek din tawanbar dikin. Dezgeha dadê, nebûna yasayê sebebkar dizane û meclîs jî cîbicînebûna yasayê sedema sereka dizane. Ji aliyek din ve



navenda xebat li dijî madeyên sirker a dezgeha serokkomariyê, civata diyarîkirina berjewendiyên rejîmê bi tawanbar dizane û polîsên taybet bo xebat li dijî madeyên sirker ên ser bi hêzên întîzamî jî gişt wan navendan bi berpirs dizanin.

Midehek beriya niha, **Tata Tahirî**, cîgirê berpirsê giştî yê navenda xebat li dijî madeyên sirker derheq pêvajoya pirr hêdî a pejirandina yasaya taybet bi madeyên sirker got: Paşkevtina pejiriandina vê yasayê nemaze yasaya taybet bi madeyên sirker ên pîşeyî bûye sebebê mifahsitandina xirab a tawanbaran û kirêtbûna rûmetê welatê Îranê di nava gişt welatên din ên cîhanê de.

**Hemîdreza Husênabadî**, berpirsê polîsên xebat li dijî madeyên sirker "NACA"ê, jî gotiye, seba wê ku endamên komîsyona yasayî a civata diyarîkirina berjewendiya rejîmê, hêj tu yasayek taybet bi madeya sirker a bi navê şîşe nepejirandiye, û di vê derheqê de gellek ser hemda xwe kar dike, heya niha 2000 qaçaxçiyên madeya şîşe seba nebûna yasayê azad bûne.

**-Ektîvnebûna melayan:**

Meleyên olî ku xwe bi rizgarkerê cîhan û axireta xelkê dizanin, heya niha xincî hilbijartina bêdengiyê li hember kirîzek han a civakî de tu helwêstek din ji xwe nîşan nedane. Ew tenê xwe bi rizgarkerê xelkê li hember hilbijartina modela pirçê yan diyarîkirina modela kincên jinên civakê dizanin. Siyîd Ehmed Xatemî, pêşnimêjê demkî yê mizgevta Tehranê, nîgeraniya melayên olî ên Qûmê derheq "bêhicabiyê" - helbet li gor îdeolojiya wan- wek metirsiyek bo ser nîzamê hesiband û daxwaza berbirûbûn tevî bedhicaban kir. Lê di halekê de ku serbarê dana hişyarî ji aliyê dezgehên pêwendîdar bi zêdebûna bengdaran di Îranê de, heya niha tu meleyek di civînên fermî de derheq vê kirîzê tu helwestek negirtine û bikaranîna madeyên sirker heram nekirine?!

Bi hebûna ew xemsarî û kêmasiyên ku di warên yasayî û dadwerî de derheq xebat li dijî madeyên sirker di Îranê de hene û guhnedana berpirsên hukûmetî û meleyên olî bi kirîza madeyên sirker ên pîşeyî di welat de, em dikarin bibêjin ku hebûna bengdarên zêde di civakê de, zêdetir ewlehiya hundurî û derûnî ji bo desthilatarên rejîmê pêk tîne û tenê ciwan û malbat in ku divêt tevî vê kirîza malvêranker berbirû bi bin.

# Yasayên Îranê Û Mafên Jinan



**Wurya Rehmanî**
**Bi kurmancî: Kewêzer**

Ji dema bidesthilatgihîştina rejîma dijî jin a Komara Îslamî heya niha, jinên Îranê bûne mezintirîn goriyên sîstema neadîlane a binkeya dadweriya Komara Îslamî. Nîzama yasayî a Îranê - ku li ser çavkaniyên kevin ên Feqîhî hatiye darêtin- esla wekheviya mafên jin û mêran bi tewayî binpê kiriye û cudahiyên cinsî û bêedaletiyek zêde bi ser jinan de sepandiye. Çavkaniya wê bêedaletiyê, yasaya sivîl, yasaya bingehîn û bi taybetî yasaya cezayî a Îslamî ye ku hilgirê cezayên tundûtûj û dijî rêsayên cîhanî û mafên mirov û guhertin û pêkhateya civaka Îranê ne.

Xalên jêrîn hin ji wan mînakên bêedaletiyan e ku sîstema yasayî a Îranê bi ser jinan de bi rewa dizane.

**1- Firejinî:** Yek ji girîngtirîn madeyên yasayî a Îranê ku weke bêhurmetiyek eşkere bo ser kesayetî û mezinahiya jinan tê hesêb, pirsa firejinî ye - -înca çi bi awayek hertimî be û çi bi awayek demkî be-. Ligor madeya 942 a yasaya bingehî a Îranê, mêr dikare ji jinekê pêtir xwe re bixwaze. Di tu yek ji yasayên Îranê de, hejmara zewicînê diyar nekirine, lê ligor olzanên Îslamê, jiyana hetayî tevî 4 jinan ji mêrekê re rewa ye. Li gel wê yekê jî hejmara zewicîna demkî "sîxe" tu sînorek nine û mêr dikare li gel dehan jinan bizewice.

**2- Mafê Lixwekirina Kincan**: Ligoir madeya 638 a yasaya cezayî a Îslamî, nebûna hicabê bi tawan tê hesibandin û jinên ku bê liberçavgirtin û cîbicîkirina hîcaba Îslamî di kûçeûkulan û şeqam yan jî di cihên giştî de derkevin, bi hepsa 10 heya 2 mehan yan bi cezayê 50 hezar heya 500 hezar tûmen cezaya nexdî tên mehkûmkirin. Serbarê vê yekê tu pênaseyek rast û durust ji hicaba Îslamî nehatiye kirin û biryardan li ser vê yekê girêdayî ye bi selîqeyên şexsî û cuda ên dadwer û birêveberên yasayê. Ev yeka jî rê ji bo pêkanîna zext û givaşan û girtina bêhêcet a jinan bi terzek berfireh xweş kiriye.

**3- Mafê xwedîkirinê**: Pêka madeya 1169 a yasaya medenî, di dema ji hevduveqetiyana jin û mêrê an de, xwedîkirina zarokên xort heya 2 salan û keç jî heya 7 salan li stûyê dayîkê ye, lê dema dayîk dizewice, îdî ev mafa jî lê tê wergirtin. Ligor madeya 1170 a yasaya medenî, ger dayîk di ew mideha ku mafê xwedîkirina zarokan li stûyê wê ye, şêt be yan bizewice, mafê xwedîkirina zarokan jê tê sitandin. Herwiha pêka yasayê, derheq xwedîkirina zarokan, bab û bapîr servey dayîkê ne û mafê wan ji dayîkê zêdetir e. Di karûbarên aborî ên zarokan de jî, dîsan hem bab hem bapîr ji dayîkê pêştir in. Zêdebarê vê yekê pêka madeya 220 a yasaya cezayî ên Îslamî, ger zarok ji aliyê bab yan bapîr ve bi enqest bihê kuştin, bikuj ji qesasê tê efûkirin, înca dayîka zarokê çi ji biryarê razî be yan jî nebe, ne girîng e. Bi vî awayî ger bab yan bapîr bi enqest zarokê bikuje, dayîkê mafê dadxwaziyê û qesaswergirtinê nine. Lê ger dayîk zarokê xwe bikuje, li ser daxwaza bavê dikarin diya zarokê qesas bikin û bikujin.

**4-Mafê şahidiyê**: Yasaya cezayî a Îranê ji bo şahidiya jinan, di bingeh de yan tu rêz û hurmetekê nadanê yan jî şehadeta jinan nêviya şahadoya mêran dihesibîne. Ligor yasayê, şahidiya du jinan beramber e digel şahidiya mêrekê, hin caran bê şahidiya mêrê şahidiya jinê her nahê qebûlkirin û di hin meselan de, şahidiya jinê her nahê qebûlkirin.

**5- Temenê balixbûnê:** temenê balixbûnê ji bo xort û keçan ne weke hev e. Pêka madeya 1210 a yasaya medenî, temenê balixbûnê ji bo xortan 15 sal û ji bo keçan 9 sale. Ku eva jî bi tewahî li dijî binemayên cîhanî ên mafê mirovan e.

**6- Pêwendiyên cinsî tevî biyaniyan** : Di yasaya cezayî a Îranê de, peywendiya azad a cinsî bi tawan tê hesibandin û wî karn bi zîna nav dibin . Cezayê zinayê ji bo jinên selt û mêrnekirî, 100 derbe şelaq e, lê ji bo jinên xwedî hevjîn, kevirbarankirin e. Ligor yasayê, ev cezayên han ên nemirovane divêt li ber çavên xelkê were cîbicîkirin. Herweha pêka madeya 637 a yasaya cezayên Îslamî, hebûna têkiliyên azad ên jin û mêran (heta ger zîna jî nebe) sûç tê hesêb û cezyê wê 99 derbe qemçî ye.

**7- Mafê Qesasê**: Ligor madeya 209 a yasaya cezayên Îslamî, mêrek ku bi enqest jinek kuştibe, nahê qesas kirin, tenê di haletekê de nebe, ew jî eva ye ku divêt malbata kesê kuştî anku malbata jinê, nîvya xwînbihayê mêrê, beriya qesaskirinê bide malbata kesê bikuj. Eva jî di halekê de ye ku ger jinek mêrekî bikujie, bê qeyd û şert dê were qesaskirin.

**8- xwînbiha**: pêka madeya 300 a yasaya cezayên Îslamî, xwînbihaya kuştina jina bisilman, çi bi enqest be û çi bi neqest nebe, nîvya xwînbihayê mêrekî ye. Bi vî awayê, yasa wekheviya mefê jiyana jin û mêrê binpê dike. Herweha ligor madeya 486 a yasaya cezayên Îslamî, xwînbihaya piza (cinîna) keç di zikê dayîkê de piştî 4 mehiyê nîvya bedelxwîna xortekî ye. Yek ji binemayên din ên neadîlane a yasaya Îranê - ku weke bêhurmetiyek mezin bo ser kesayetî û mezinahiya dayîkê tê hesêb-ewe ku ger jinek pêgiran ji kurekî 4 mehî, bihê kuştin, bedelxwîna zarokê 4 mehî di zikê dayikê de, du beramberî bedelxwîna dayîkê ye. Bi awayek din yasadaner, xwînbihayê pîza zarokek 4 mehî ji xwînbihaya jinekê zêdetir dizane.

**9-Bindestbûna jinê di jiyana hevbeş de**: Ligor madeya 1108 a yasaya medenî, divêt jin di her rewşekê de, guhê xwe bide qisê hevjînê xwe û bindestê wî de be. Hewcehiya bindestbûna jinê bê tu şert û mercekê, di rastî de bi fermînasîna destdirîjîkirina mêrê ye bo ser jinê, ku niha di pirraniya welatan de bi tawan tê hesibandin û cezayeke giran heye.

**10- Mafê cudabûnê**: Ligor madeya 1133 a yasaya medenî, mêr her demekê bixwaze dikare jina xwe telaq bide, lê jin ne xwediyê vê mafê ye.

**11- Mafê milk û mîratê**: Pêka gişt madeyên yasaya medenî ên taybet bi milk û mîratê, ji "madeya 861bigire heya 949'an" mafê jin û keçê ji milk û mîratê nîvya mafê mêr û xortan e.

**12- Mafê êxistina pîzê (siqtê cinîn)**: Pêka madeya 489 a yasaya cezayên Îslamî, êxistina pîzê ji aliyê jinan ve bi tawan tê hesibandin û çi dema ku jin zarokên xwe berbiavêje, di her qonaxekê de be, divêt bedelxwîna wî\wê bide û bi xwe jî ne xwediyê tu pişkek ji vê bedelxwînê ye.



**13- Mafê hevwelatîbûna zarokan**: Yasaya medenî a Îranê, tu mafeke taybet û serbixwe a hevwelatîbûnê ji bo jinan bi rewa nizane. Pêka vê yasayê, jin nikare esla hevwelatîbûna xwe veguhase bo zarokên xwe û hevwelatîbûna zarokên wê ji bavê zarokan ve tê sitandin. Wate bavê wan hevwelatiyê kîjan welatê be zarok jî dibe hevwelatiyê ew welatê.

**14- Mafê desthilatdariya malbatê**: Ligor madeya 1105 a yasaya medenî, serokatiya malbatê li stûyê malxê malê ye û jin bê îzna malxê malê nikare ji malê derkeve. Bi vî awayî, ger mêrê malê îznê nede jinê, jin netenê ji mafê karkirin li derveyî malê de bêpar e, belku bê îzna mêrê heta nikare bo kirîna hewcehiyên jiyanê û seredana kesûkarên xwe biçe derê. Herweha ger jin bixwaze sefera derveyî welat bike divêt înza hevjînê wê, ew jî bi awayê nivîskî hebe.

**15- Mafê akincîbûnê**: pêka madeya 1114 a yasaya medenî, divêt jin di wê avahiyê de akincî be û jiyanê bike ku mêr jêre diyarî dike. Bi awayek din, yasaya mafê diyarîkirina avahiyê ji jinan hatiye sitandin.

**16- Mafê hilbijartina hevjînê**: Ligor madeya 1059 a yasaya medenî, mêr di diyarîkirina jinê de, serbest e, heta dikare ligel jinekê nemisilman yan derveyî welatê xwe jî bizewice, lê mafê han ji jinê re tune.

Ev xalane, hinek ji wan madeyên yasayî ne ku heta mafên here destpêkî û seretayî ên medenî û cinsî ji jinan sitandine û bi bêhurmetîkirin û diperawêz xsitina wan de, rê ji bo serhildana diyardeyên weke xwekujî, xweşevitandin, helatin ji malê, xwefirotin, tunûtûjî, destdirêjîkirin, ji hevcudabûn, êxistina pîzê, bengdarbûn û ferq û cudahîpêkanîna di navendên kar, dibistan û zanîngehan de, xweş kiriye.

Rejîma Komara Îslamî, ne tenê nikare weke desthilatek olî wekheviya jin û mêran qebûl bike, belkû hewil dide bi piştgirêdan bi olê pasawê ji bo ferq û cudahiyên han bîne. Rejîma Komara Îslamî her bi vê hêcetê û pasawê, rexnegirên nedadperweriyên han tawanbar dikin bi dujminatîkirin tevî ol û fermana xwedê û bi şêwazên curbicur wan tepeser dikin. Lewma dema ku dijberîkirin tevî jinan û binpêkirina mafên wan bûye yek ji siyasetên fermî ên Komara Îslamî, heta bi xeyalde anîna betalkirina yasayên han, çavnihêriyek bêencam e û her bi wî awayî ku ezmûnan nîşan daye, tenê bi sernixoniya vê rejîmê ye ku wekhevî û edaleta cinsî di nîzama maf a Îranê de, cihgîr dibe.

# BIYANÎBÛN



ADAR JIYA
adarjiyan@mynet.com

Biyanîbûn, veguherandina derûn û kakilê jiyana mirov a xweser û taybet ku bêhemd li bêahengî, bêwateyî û jixwebidûrketineke bêyom dadigere ye. Bi vegotineke din biyanîbûn, mirov ji kirdeya jiyanê derdixe û wî/wê wekî biresereke bênirx û tişteyî dide bikaranîn û xebitandin.

Kengî ku ber û berhemên ku mirov bi destê xwe diafirîne hin bi hin ji reseniya xwe bidûr dikevin û ku bedewî û gewzîneriya wan ber û berheman li dijminahî û têkbirina mirov dadigerin, wê çaxê biyanîbûna mirov û civakê jî dest pê dike. û wê gavê mirov û civak dibin dîl û bindestên ber û berhemên ku wan bi destê xwe afirandine. Biyanîbûn, bi awayekî jî bi alozî û tevlîheviya pêwendiyên civakî re rû dide. Belê ev geremol û aloziyên civakî ne îro; hê di destpêka xwedîtiyê(mulkiyetê) derketine holê. Xwedîtî, her çend ku çendanî û çawaniya hilberiyê zêde dike jî, xwedîtiya arizî ya ku gihîştiye merhaleya îro, xwezayê û hemû heyberên wê roj bi roj dihelikîne.

Biyanîbûn, di derûniya mirov de, di encama lêkdana hewldanên ku bi mebesta jiyaneke serbilind û rûmetdar dest pê dike û liv û bizavên ku mirov gav bi gav arasteyî bêrûmetî serberjeriyê dike de pêk tê û teşe digire. Her çend ku rûxînerî, wêrankerî û biyanîbûna mirov a civakî di hemû warên jiyanê de pêkan be jî, dîsa cerbirandin û ewêzî (xelef) û vegerandina wê tiştekî gengaz e. Belê çilvirîn, kavilkirin û dejenerekirina wêjeyê tu car bi hêsayî nayê cebirandin epêkan e jî. Ango, bêeslkirina civak an jî neteweyekê, pêşî bi bişavtin û biyanîbûna wêjeyê dest pê dike. Bi kurtayî jehra biyanîbûn û bêesilbûna civakê, di serî de xwe di wêjeyê de dide der. Peyre jî hin bi hin li hemû rehên çanda gel û civakê belav dibe û wê dîl radest digire. Ji do heta îro- di dîroka wêjeya gelan de-lixwexwedîbûn û jixwebidûrketina mirov û civakê, wekî du dijminên pozber û lêkneker misêwa bi hev û din re şer dikin û dikevin cirê. Herdu dijberên qedîm û kevnar her dem li dij hev belê pevre dijîn. Bi heman awayî jî her gav bi hev û din re dikevin nava rikbariyeke giran. Bi vê lêkdanên dijwar re yek li ya din dadigere. Şerê navbera herduyan dişibe şer û pevçûnên navbera mirovên bilebat û afirîner ên ku puxteya jiyanê bidest dixin û kesên têkçûyî yên ku di nava hevkêşî û aloziyan de winda dibin. Ev şer û lêkdanên bênavber car caran li serkeftinên bêhempa û car caran jî li têkçûnên bêkêr û bêxêr dadigerin. Bi awayekî din, yek yekê winda dike an jî yek yeka din dişibîne xwe.

Mirovahî, digel ku tiştên pir payebilind û qîmetdar diafirîne bi heman awayî gelek tiştên kerax bêteşe jî dixuliqîne. Ji aliyekî ve di hêla zanist û teknolojiyê de pêşve diçe; şoreş û veguherînên pêemsal bidest dixe û ji aliyê din ve jî nirx û hêjahiyên dîrokî bi destê xwe ji holê radike. Zimanê ku bi hezaran sal hatiye axaftin, çand û hunera ku dexmeya xwe li dîrokê daye, wêjeya ku bûye ronîdariyên dîrokî û hwd. hemû bi teknolojiya nûjen re hêdî hêdî ji qada jiyanê vedikişin û hin bi hin winda dibin.

Mixabin îro ro mirovahî xwe dispêrê civakeke yekpar, bêruh, bêgiyan bêhest û bêraman. Bi vê yekê re dahatûya cihanê û tevê mirovahiyê dikeve xetereyeke mezin û çarenîn. Lewre mirovahiya ku ji wêje, huner û estetîzma giyanî bidûr bikeve, dê tucar nikaribe xwe ji belawat û karesatên vê dinê reha bike. Bi vegotineke din; biyanîbûn li şûna ku mirov her gav bi kesên din re di nav kar û xebatên hevpar û sûdewar de be, hêjahiyên payedar biafirîne; ji aliyekî ve ji reseniya xwe bidûr dikeve ji aliyê din ve jî dikeve nava liv û bizavên pelos û di tevgerên kerih û bêyom de digere. Hêçku wêje, bi hemû lihemberderketina liv û bizavên bêsinc û tevgerên derexlaqî ye. Hovîtî, pesarî û hovîtiya mirov bi saya wêjeyê û berhemên wêjeyî ji holê radibe. Her wiha kemilîn, peresîn û şarezahîbûna mirov a derûnî û ramanî jî dîsa bi saya wêjeyê bidest dikeve. Wêje, perwerdekirina peyvê, sererastkirina axaftinê, gewzandina hestê, stewandina ramanê û ya gîringtirîn jî bedewkirina liv û bizavên mirov e.

Rewşa ku em tê de ne, rewşeke gelêrî (anonîm) e. Ev nediyarî dibe sedema jixwebidûrketin û biyanîbûna mirov û mirovahiyê. Ji ramanwerên ku biyanîbûn bi awayekî rastîn rave kiriye yek jê Albert Camus e. Camus dibêje; "Mirov bûne biyaniyên jiyan û bizavên xwe" Rast e. Mirov hay ji jiyan û cîhana xwe ya ku tê de dijîn, nîn e. Kes nizane kî çi dike an ji kî ji bo çi, çi dike. Êdî teqet û mecala mirovan nemaye ku arasteyî liv û bizavên xwe bibin û jiyana xwe ya rojane bi rê ve bibin. Mirov, li hember bûyer û karesatên ku roj bi roj jiyana wan diherimîne bêdeng dimînin. Ne bandoreke erênî li vê rewşa kambax dike û ne jî ji van neyîniyan wêneyeke erênî distîne. Bêhêvî û bêhevhîkariyeke xurt xwe li hemû mefselên jiyana mirov rapêçaye û dil û mêjiyê wî/wê dîl girtiye.

Kaniya Helbestan

## Henaseyên şê'rî



Ebdulrehman Bamernî - Duhok
Bamerni77@yahoo.com

**"Pêşmerge"**

Her bihosta pêyê xwe lê danî
şûnpêyên min in û
gulleyek ya vêketî!
her dara mezin a bigehiyê û
liber sîbera wê birûnêy
gora şehîdekê ye û
divêt sirûda Ey Reqîb li ser bixwînî...

**"Tiberrik"**

Li pehnatiya
bajêrê ez lê jidayîk bûm
maç û sûndên xelkî
destên şêxî bûn!
piştî maçên tilistaran
maçên şêxan jî
berêvey bajêrî bûn...

**"Nihênî "**

Davên pirça te
wek peyvên şê'reka min
çavên xelkî radikêşin!
çend bikevin ber davên şey û
hilî bibin...
hind şêira min belav dibît û
nihêniyên ciwaniya te
radigrît...

agiri

**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**



## Tonî Bilêr: Tenê Êrîşa Leşkerî Dikare Rewşa Îranê Normal Bike



Serokweîzrê Berê yê Brîtanyayê Tonî Bilêr diyar kir ku pêwîste civaka navnetewî xwe bo êrîşa leşkerî bo ser Îranê amade bike.

Tonî Bilêr di hevdîtinekê de digel Ajansa Nûçegihaniya BBC'ê behsa pirtûka xwe ya nû dike ku vê dawiyê nivîsandiye û zêdebarê behskirin li ser pirsgirêkên Rojhilata Navîn wiha dibêje. "Bi tu awayekê nabe rê bi Îranê bihê dan ku bibe xwediyê çekên nuklerî û ger rojekê ew welat çekên etomî bidest bixe tu riyek namîne xincî êrîşa leşkerî bo ser vî welatî".

Bilêr daxwaz ji Komara Îslamî a Îranê kir ku guh bidin axaftinên wî û di xema welat û hikûmet û deverê de bin. Derbarê êrîşa ser Iraqê jî Bilêr wiha domand, "Me digel hevpeymanên xwe biryara bicî da ku êrîşî bikin ser Iraqê, ji ber ku hikûmeta wî welatî hem bo xelkê Iraqê û hem bo xelkê welatên deverê nebaş û metirîdar bû."

## Di Gerstêrka Mirrîx De Jiyan Hebûye



Ajansa esmanger a Amerîkayê "Nasa", di raporekê de eşkere kir ku niha tîmên ajansa wan li gersitêrka Mirîxê ne û li dîv şûnwarên jiyanê di wê gersitêrkê de digerin. Wan karîne hinek ji madeyên sereke ên pêkanîna jiyanê peyda bikin.

Herçend ew rapor wê yekê dernaxe ku di dema niha de li wir jiyan heye yan na, lê hêviyekê pêtir dide pisporên "Nasa"ê' ku ji wê yekê piştrast bin ku di wê gersitêrkê de jiyan heye yan jî hebûye.

Hêjayî gotinê ye çendîn sale ajansa "Nasa"ê, mijûlê vekolîn li ser wê yekê ye da ku bizane li wir av hebûye yan na, lê bi vedîtinên nû yên ajansa "Nasa", niha derketiye ku serdemekê gersitêrka Mirîxê bi tewayî di bin avê de bû ye. Niha jî geryana "Nasa"ê, eve ku vekolînê li ser wan madeyên organîzm bikin ku şûnwarên jiyanê di wê gersitêrkê de eşkere dikin.

## Gişt Endamên Tîma Bayskil siwarî A Îraqê Ên Beşdarê pêşbirkêya Pehlewaniya Erebî, Kurd În

Îbrahîm kerîm, serperestê giştî yê **Bayskil siwarî** keç ên Îraqê ragihand, Yekîtiya **bicycle siwarên** Îraqê navê 8 keçên lîstikvan ên Îraqê bo kêbirkêya pehlewanî a Erebî li Tonisê eşkere kir ku cihê keyfxweşiyê ye tewaya sitafa rahênan û lîstikvanên wê tîmê, Kurd in.

Hêjayî gotinê ye ku keçên lîstikvan ên herêma Kurdistanê di hemû kêbirkêyên Îraqê de serkevtinên mezin bidest xistine.

## Du Weşanên Nû ji aliyê du hevkarên Agirî ve



Pirtûka "Gardiyan" ji nivîsîna bûbê Eser, pirtûkek nû ye ku wan rojane ji aliyê Şehab Xalidî ve ji diyalikta Kurmanciya jorîn bo Kurmanciya jêrîn hate wergerandin û kete ber destê xwendevanan.

Pirtûka "gardiyan" romanek rastîn e ku bas ji biserhata dilêş a îşkencekirina zîndaniyên siyasî ên girtîgha bajarê Diyarbekirê dike.

Navê pirtûkê anku Gardiyan, tê wateya zîndanvan û bas ji metodên îşkencekirin di girtîeha diyarbekir de dike.

***

Herwiha pirtûkek din bi navê "Tu û Evîna Platonîk", ji nivîsîna Loqman Polat, wan rojane derket. Pirtûk 112 rûpel e û têde kurteçîrokên curbecur hene. Kurteçîrokên ku di pirtûkê de ne, ji aliyê nivîskar ve ji nav rastiya jiyanê û lêzedekirina xeyalên cihêreng bi şêweyeke edebî hatine afirandin.

Nivîskarê pirtûkê Loqman Polat rastiyên jiyanê û xeyalê tevlîhev kiriye û bi sitîleke modern novelên kurdî yên nûjen nivîsiye.




Ev şêwe nivîsîn, niha şûnde dê bibe rengê naverokên berhemên Loqman Polat yên kurteçîrok, kurteroman û romanê, dê bibe metoda teknîka nivîskarîya wî."

Rojnameya Agirî serbarê destxweşîkirin ji her du rojnamevan û hevkarên xwe, Şehab Xalidî û Luqman Polat, hêviya serketin û berdewamiya di xizmet û dewlemenkirina pirtûkxaneya kurdî de ji wan re dixwaze.